

# BUROYA KURDÎ
# ya Pêwendî û Agahdariyê

**Bultena agahdariyê N° 142 - Sibat 2017**
Quai aux Pierres de Taille (Arduinkaai) 11, 1000 Bruxelles - Tel. 02 219 80 60 – 047 897 882
www.kurdishbureau.bekurdishbureau@scarlet. **www.facebook.com/bureaukurde**
http://en.calameo.com/accounts/3601834

## NÛÇEYEKE BAŞ

Me di bultena xwe N° 136, a Tebax 2016, de ji xwedendevanan re rewşa xwe ya malî ya ne baş daxuyandi bû. Lê, ji wê gavê de, bi saya bilinkirina beşek ji "subsides"ên wezaretan û hin deyn û alîkariyan, ew baştir bû. Loma Buroya Kurdî çalakiyên xwe bi awakî sirûştî (normal) dajo (dewam dike).

# ENCAMA ÇALAKIYÊN BUROYA KURDÎ DI 2016 DE

***1. Çalakiyên rojane***

- **Wergerandin û alîkariya civakî**, ji bo Kurd, Îranî û Afxaniyan, bi hevkariya rêxistina Bruxelles-Accueil (Brussel Onthaal). **Zaralî Nikraweş**, ji Kurdistana Îranê, **255 caran** wergerand.

**- Fêrên** zimanên fransî û hollandî.

- **Pirtûkxane û mêdyatêk**, bi nêzîkî 10 zimanan.

- **Secrétariat, facebook, nivîsîn û wergerandina bultena agahdariyê, bi 4 zimanan.**

***2. Çalakiyên mehane : 24***

**a) Bultena agagdariyê** : 12 hejmar, N° 129-141, bi 4 zimanan : Kurdî, fransî, hollandî û ingilîzî. Ew ji nêzîkî 1.000 navnîşanan re hatiye e.mail kirin.

**b) Konfêrans** li ser dîrok, çand û rojeva kurdî, û li ser çanda ewropî ya kevn û koçbûna ber bi Beljîka û Ewropa : 12

***3. Hevkarî bi rêxistinên din re : 8***

***4. Beşdarbûna çalakiyên rêxistinên din : 37***

# ÇALAKIYÊN BUROYA KURDÎ

*ÇILE 2017*

## KONFÊRANS



**29.01.2017 : Roja Ala Kurdî û Dahatuya Kurdistanê**



**Rênas Newrozî**, rojnamevan û nivîskar, li ser girîngiya alan û wateyên (ma'na) wan li cihanê û piştre li ser dîroka ala kurdî peyivî. Wî got ku ji demên kevnar de, her imperatoriyek û mîriyeke kurdî ala wê ya taybetî hebû. Di nîvê hemuyan de, weka di ala nuha de, tav hebû, ji bo ku wate û ciyekî wê ya taybetî li bal Kurdan heye. Wî wêneyên (foto) çend ji wan nîşan dan : Ala kevnar, ala Eyyûbiyan (Sultanê mezzin Selahdeddînê Eyyûbî, ku Xaçparêz şikandin û Quds ji wan stend), a dewleta Zend, mîriya Soran, hukûmeta Şêx Mehmûd li Suleymaniyê di 1922 de, serhildana Çiyayê Agirî di 1930 de û Komara Kurdî ya Mahabadê di 1946 de.

Piştre, ew li ser ala nuha ya Kurdistanê peyivî. Ew di 1919 de, li Istanbulê, ji aliyê rêxistina kurdî Teşkilati Ictimaiye Cemiyeti (Komela Rêxistina Civakî) hat çêkirin. Wê serxwebûna Kurdistanê dixwest û ji aliyê 12 ronakbîrên kurd ên navçeyên cihê yên Kurdistana Tirkiye û Iraqê, hati bû ava kirin : Emîn Alî Bedirxan, Dr. Abdullah Cevdet, Ekrem Cemîl Paşa (bavê Pervîn Cemîl, seroka Buroya Kurdî), Mewlana Rifet, Necmeddîn Huseyn, Kemal Fewzî, Şukrî Baban, Memdûh Selîm, Hikmet Baban, Fuad Baban, Dr. Şukrî Mehmed, Ferîd Beg.

Ev al ji 4 rengan pêk hatiye (sor li jor, sipî li nîv, kesk li jêr. Taveke zer li nîvê wê, li ser rengê sipî). Ew di Sibat 1925 de, di dema serhiladan Şêx Seîd de, û li Amedê (Diyarbekir), li Kurdistana Tirkiyê, hat bilind kirin.

Li dawiyê, Newrozî rewşên ramyariyî (siyasî) yên nuha, yên 4 perçeyên Kurdistanê, Li Tirkiye, Îran, Iraq û Sûriyê, bi kurtî gotin. Û ew li ser girîngiya rola nuha ya Kurdan li asta (sewiye) navneteweyî jî peyivî û got ku hêviya dîtina çareyekê ji pirsa kurdî re ji berê xurttir e.



# BEŞDARBÛNA ÇALAKIYÊN RÊXISTINÊN DIN

***24.01.2017 : Statuya Dîplomatîk a Mayîn û Kar li Beljîka***
Ajansa Entêgrasyon û Welatvaniyê **(Agentschap Integratie & Inburgering)** nîv-rojeke lêkolînê li rêxistina **Foyer** pêk anî. 2 karmendên wezareta beljîkî a karên derve, Banû Bregt Vyncke û Koenraad De Coster, çarçeveya yasayî (lêgal) a mayîna diplomat û karmendan, û ya malbatên wan, li Beljîka ravekir (got). Nêzîkî 50 karmend û diplomat amade bûn. Piştre, rêsêpsyonek hat pêşkêş kirin.

***29.01.2017 : Şano û rêsêpsyon***
Navenda çandî **De Markten**, ku Buroya Kurdî endama wê ye, şanoyek bi navê "'Appart" (apartman, avahiyên çend qat), a koma Forsiti'A, pêşkêş kir. Babeta wê tenhabûna rûniştevanên apartmanên avahiyên bilind (building) bû. Ev şanoya gelek taybet (xusûsî, orîjînal) ji aliyê aktorên ji netewahiyên cihê, li ber paceyên çend odeyên De Markten, hat lîztin û temaşevanan jî ji derve, ji hewşê, li wan dinêrî. Piştre, rêsêpsyonek hat pêşkêş kirin.

***31.01.2017 : Rêsêpsyona Sersalê***
Fêdêrasyona **Minderhedenforum** (Foruma Hindikayiyan), ku Buroya Kurdî endama wê ye, rêsêpsyoneke Sersalê, li navenda çandî De Markten pêşkêş kir. Berpirsiyarên wê yên cihê, û wezîrê çandê Sven Gats, tê de axaftin li ser pêwîstiya mezzin a bihevrejiyanê û têkilbûna çandên cihê kirin.

# NÛÇE JI KURDISTANÊ

*ÇILE 2017*

## KURDISTANA TIRKIYÊ

**DÛMAHÎKA ŞERRÊ DI NAVBERA LEŞKERÊ TIRKÎ, PKK Û DAIŞê DE**

**DIRÊJKIRINA REWŞA AWARTE Û ŞERR**
Cîrgirê serokwezîrê tirk, Numan Kurtulmuş, daxuyand ku piştî dengdana li parlementa tirkî, ewê Rewşa Awarte (istisnaî) 3 mehan li tevayiya Tirkiyê, ji 19 Çile 2017 de, bê dirêj kirin.

Piştî tecrubeya darbeya leşkerî di 15 Tîrmeh 2016 de, rewşa awarte ji bo 3 mehan hati bû daxuyandin. Ev cara 3mîn e ku ew tê dirêj kirin.
*(rudaw.net, 04.01.2017)*

***Navçeya Amedê (Diyarbekir)***
Ji sedema tevgerên leşkerî, qedexekirina hatûçûnê, heta fermaneke din, li 10 gund û bajarokên Licê, ku girêdayî Amedê ye, hat daxuyandin (îlan kirin). Qedexekirin ***di 05 Çile 2017 de, di demjimêr 5 a serê sibê de*** dest pê kir.

Li gora parêzgarê (walî) Amedê, amanca vê yekê derxistina PKKê ji navçê û parastina sîvîlan e.

***Di 12 Çile 2017 de***, qedexekirina hatûçûnê li 13 gund û bajarokên Hênê û Licê hat daxuyandin. Ew di demjimêr 5 a serê sibê de dest pê kir û ewê heta fermaneke din bajo (dewam bike).
*(rudaw.net, 05 û 12.01.2017)*

3 muxtarên bajarokê Bismilê, ku girêdayî Amedê ye, bi tawana (sûc) kirina propaganda PKKê li ser Face Booka xwe, ji kar hatin avêtin.
*(rudaw.net, 17.01.2017)*

***Navçeya Wanê (Van)***
***Di 17 Çile de***, bi şev, bi piştgiriya hêlîkoptêran, hêzên ewlehiyê yên tirkî ketin nav malekê, li bajarokê Ertemêtanê, yê girêdayî Wanê. Piştî pevçûnan, 2 kes hatin kuştin. Polîs dibêje ku ew PKK bûn. Heta nuha, PKKê tu daxuyanî li ser vê babetê ne kiriye.
*(rudaw.net, 18.01.2017)*

***Semsûr (Adıyaman)***
Firokeyên şerr bingehên PKKê bombe kirin û piştre vegeriyan.
*(rudaw.net, 21.01.2017)*

**3 PARLEMENTERÊN KURD TÊN AZAD KIRIN**
Parlementera Şirnexê (Şırnak), ya partiya kurdî HDP (Partiya Dêmokratîk a Gelan), Leyla Birlik, piştî 2 meh girtin li zindana Silivri, hat azad kirin. Li ser daxwaziya dozkarê (procureur) komarê, ew bi 37 sal zîndan hati bû tawanbar (mehkûm) kirin û di 04.11.2016 de hati bû girtin.

***Di 27 Çile de***, bi şev, parlementera Adana, a heman partiya kurdî HDP, Meral Danış, li mala xwe, li Amedê (Diyarbekir), hat ragirtin û piştre, roja din, di 28 Çile de, piştî çûna ber dadgeha vî bajarî, hat berdan.

***Di 30 Çile de***, parlementerê Çewlikê (Bingöl), yê partiya HDP, Idris Baluken, hat azad kirin. Ew di 04.11.2016 de, tevî 11 parlementerên din ên vê partiyê, hati bû ragirtin.
*(rudaw.net, 05, 28 û 30.01.2017)*

**11 KES TÊN RAGIRTIN**
Li Wêranşarê, li nêzîkî Rihayê (Urfa), 11 kes, bi tawana kirina propaganda PKKê li ser torên xwe yên civakî (twitter, facebook …), hatin ragirtin. Ev tevger ji aliyê hêzên ewlehiyê (emniyyet), ku li 14 malan lêgrîn kirin, hat pêk anîn.
*(rudaw.net, 28.01.2017)*

**2 KURDÊN ÎRANÊ TÊN RAGIRTIN**
***Di 03 Çile 2017 de***, 2 Kurdên Îranê, Jiyar Cihanferd, nivîskarekî ji Kirmanşahê, û hevalê wî Hesen Balada, xwendekar, li otogara Mêrdînê, bi tawana (sûc) hevkariya bi PKKê re, hatin ragirtin.

***Piştî 22 rojan***, ew hatin birin dadgeha Mêrdînê. Wê jî ew bi hevkariya bi PKKê re tawanbar kirin û fermana ragirtina wan da.

Serokê Rêxistina Nivîskarên Kurd, Şêxmûs Sefer, ev tawan red kir û got ku Jiyar Cihanferd ji bo kirina lêgerînên çandî û nivîsîna pirtûka xwe hati bû Mêrdînê.

Parêzerê (avukat) her du tawankiriyan, Necat Çiray, ji BBC re daxuyand ku dadgeha tirkî ew bi stendina wêneyên (foto) PKKê tawanbar kirin, lê ew geştiyar (tûrîst) bûn û haya wan ji rewşa awarte li vê navçeyê nîn bû. Wan gelek fotoyên navçeya Mêrdînê stendin.
*(rudaw.net, 28.01.2017)*

**3 YAYENÊN FUTBOLÊ Û 8 RÊXISTINÊN WERZIŞÎ TÊN QEDEXE KIRIN**
Di çarçeveya rewşa awarte de, her 3 yaneyên (êkîp) futbolê, yên Şirnex, Cizîr û Malatya, hatin qedexe kirin. Ev yek di rojnameya fermî de hat daxuyandin (îlan kirin). Bi ser de jî, 8 rêxistinên werzişî (ên sportê) li

Şirnex û Dîlokê (li Kurdistanê) û li Malatya û Izmitê (li Tirkiyê), hatin qedexe kirin.

Di çarçeveya heman biryarname N° 679 de, bi hezaran kes ji karê xwe hatin avêtin.

**6 AKADÊMÎKÊN KURD JI KAR TÊN AVÊTIN**
Di çarçeveya heman biryarnameya jorîn de, 6 akadêmîkên kurd, ên beşa ziman û çana kurdî, ya zanîngeha Artuklu, ya Mêrdînê, ji karê xwe hatin avêtin.
*(rudaw.net, 07.01.2017)*

**PEYKEREK LI AMEDÊ TÊ RAKIRIN**




***Di şeva 28.12.2011 de***, 34 kolberên (qaçaxçî) kurd, ku ji wan 19 zarok, li gundê Roboskî, yê bajarokê Qilabanê, ku girêdayî Şirnexê ye, ji aliyê bombeyên firokeyên tirkî hati bûn kuştin û 4 jî birîndar kirin.

Ji bo bibîranîna vê bûyerê, şaredariya Peyasê, ja bajarê Amedê (Diyarbekir), li parka Amedê peykerek (heykel) danî bû.

***Di 07.01. 2017 de***, bi şev, polîsê tirkî ev peyker rakir.
*(rudaw.net, 08.01.2017)*

**2 SIYASIYÊN KURD TÊN RAGIRTIN**
***Di 11 Çile de***, serokê partiya kurdî PAKURD, Ibrahim Halil, li mala xwe, ji aliyê hêzên ewlehiyê yên Pirsûsê (Suruç), li Kurdistana Tirkiyê, hat ragirtin û êşkence kirin.

Ev yek bû sedema riswakirina (protêsto) 5 partiyên kurdî : Hereketa Azadî, Partiya Azadiya Kurdistan (PAK), Partiya Kurdistanî (PAKURD), PDK-Bakur, Partiya Sosyalîst a Kurdistan. Di daxuyaniya xwe de, wan ji Tirkiyê xwest ku xwe girêbide Lihevkirina Navneteweyî li Dijî Êşkencê.
*(rudaw.net, 11 û 19.01.2017)*

***Di 29 Çile de***, berdevkê Partiya Dêmokratîk a Gelan "HDP", Ayhan Bilgen, li Ankara hat ragirtin û piştre, ji bo jêpirsînê, ew hat birin Amedê. *(rudaw.net, 29.01.2017)*

**PARLEMENTEREKE KURD LI ZÎNDANÊ**
***Di 13 Çile de***, 2mîn Dadgeha Cezayên Giran a Amedê parlementera vî bajarî, ya partiya kurdî HDP, Nursel Aydoğan, bi 4 sal, 8 meh û 7 roj zîndan tawanbar kir. Ew bi "endambûna rêxistineke têrrorîst" hatiye tawanbar kirin.
*(rudaw.net, 13.01.2017)*

**ŞAREDARÊ MÊRDÎNÊ LI DADGEHÊ**
***Di 23 Çile de***, şaredarê Mêrdînê, Ahmet Türk, hat birin Dadgeha Bilind a Cezayî ya Amedê. Ev yek di çarçeveya doza KCKê (Rêxistina Civaka Kurdistan, ku girêdayî PKKê ye). Heta nuha, 154 endamên partiyên kurdî HDP û DBP, ku ji wan Ahmet Türk, hatine dadgeh kirin. Türk ji sedema axaftineke ku di Newroza 2012 de kiri bû hatiye tawanbar kirin. Di 17.11.2016 de, ew ji karê xwe yê şaredar hati bû derxistin û di 21ê heman mehê de hati bû ragirtin. Tê gotin ku ew, ji sedema temenê (umr) xwe yê mezzin, ji dil nexweş e.
*(rudaw.net, 23.01.2017)*

**ÊRÎŞÊN CIHÊ LI TIRKIYÊ**

***Izmir***
***Di 05 Çile 2017 de***, li Izmirê êrîşek bû. Polîsekî kurd û karmendekî dadgehê hatin kuştin. Polîs 2 êrîşker kuştin.

Piştre, partiya kurdî TAK "Teyrên Azadiya Kurdistan" xwedî li vê êrîşê derket û daxuyand ku di pevçûnên ku piştre bûn de, 2 ji endamên wê hatin kuştin.
*(rudaw.net, 05 û 11.01.2017)*

***Istanbul***
***Di 16 Çile 2017 de***, bi şev, êrîşkerê Istanbulê, yê ***01.01.2017***, hat ragirtin. Ew ji Uzbêkistanê ye, navê wî Ebdulkari Maşaripov e û 33 salî ye. Ew li Afxanistanê hatiye gihandin û 4 zimanan dizane. Wî ev êrîş bi navê Dewleta Islamî kir. 39 kes hatin kuştin û 69 birîndar kirin.

***Di 20 Çile de***, bi şev, rokêtek li ser avahiya birêvebiriya ewlehiyê hat avêtin. Tu qurban ne bûn. Polîs dest bi vekolînekê kir.
*(rudaw.net, 17 û 21.01.2017)*

**KARÎNÊN SEROKÊ TIRK TÊN XURTTIR KIRIN**
***Di 13 Çile 2017 de***, piştî giftûgoyên dirêj û pevçûnên fîzîkî, parlementa tirkî deng da bend 8 a destûra bingehî, ku destûr (izn) dide xurtkirina karînên (sulta, hêz) Serokê Komarê. Ji nuha û şûn de, ewê karibe yasayan (qanûn) biweşîne yan jî wan vegerîne parlementê, biryarnameyan derxîne, siyaseta ewlehiya neteweyî daxuyîne (îlan bike), û eger pêwîst be, hin

guhertinan bike û biryaran bistîne. Bi ser de jî, bi piştgiriya parlementê, ewê karibe cara 2mîn bên hilbijartin.

Ev dengdan ji aliyê 340 parlementeran ji 481 hat kirin. Li gora destûra tirkî, ji bo pesendkirina (tesdîq) her bendekê, 339 deng pêwîst in.
*(rudaw.net, 13 û 14.01.2016)*

# KURDISTANA IRAQÊ

**MÎREKÎ DEWLETA ISLAMÎ TÊ KUŞTIN**
Encumena Ewlehiyê ya Herêma Kurdistanê daxuyand ku ***di 05.01.2017 de***, Hêza Dijî Têrrorê, ku piştgiriya Hevbendiya Navneteweyî li dijî Dewleta Islamî dike, tevgerek li bajarokê Hewîcê, ku girêdayî Kerkûkê ye, kir û tê de yek ji "Mîrên" Dewleta Islamî, Islam Taha El-Ubeydî, ku bi navê "kod" ê Dr. Muawiye hatiye nasîn, kuşt.

Ev "Mîr" berpirsiyarê navenda tendurustiyê (saxî) ya Kerkûkê bû. Wî bi dehan sîvîl kuşti bûn û jinên kurd ên yezîdî êşkence kiri bûn. Di 2015 de, wî 4 Pêşmerge kuşti bûn.
*(rudaw.net, 08.01.2017)*

**60 DAIŞ TÊN RAGIRTIN Û 14 KUŞTIN**
Encumena Ewlehiya Herêma Kurdistanê daxuyand ku 60 şervanên Dewleta Islamî hatin ragirtin. Hin ji wan êrîşkirina buroyên berpirsiyarên fermî (resmî) û partiyên ramyariyî (siyasî), û ciyên geştyariyî (siyahî) yên Kurdistanê plan kiri bû. Û wê got jî ku 3 ji wan Kurd bûn, ku Dewleta Islamî navên "Mîr" li wan kiri bû û ku ew ji Mûsilê hati bûn.

Vê encumenê got jî ku nuha 14 DAIŞ li navçeyên çiyayî yên Halabca û Sengawê hatine kuştin.
*(rudaw.net, 15.01.2017)*

**14 KURDÊN YEZÎDÎ JI DAIŞÊ TÊN RIZGAR KIRIN**
Berpirsiyarê Buroya Rizgarkirina Kurdên Yezîdî, Derman Xetarî, daxuyand ku ***ji destpêka 2017 de***, 5 Kurdên yezîdî li Mûsilê û 9 jî li Sûriyê hatin rizgar kirin, û ku wan xwe gihand malbatên xwe.
*(rudaw.net, 09.01.2017)*

**REWŞA ŞINGALÊ**

***PKK rizgarkirina Şingalê asteng dike***
Fermandarê berê yê leşkerê iraqî, Babekir Zîbarî (Kurd), ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku dema ku serbazên (esker) amerîkî bi 2 hêlîkoptêran hati bûn gundê Koço, li Şingalê (navçeya Kurdên Yezîdî, ku ji aliyê Daişê hati bû êrîş kirin, û piştre hati bû rizgar kirin), şervanên PKKê,ku li wê derê bûn û ku alên xwe bilind kiri bûn, ne hişt ku dakevin.

Di 03 Tebax 2014 de, Dewleta Islamî êrîşî Şingalê kiri bû. Bitenê li gundê Koço, wê 300 kes kuşti bûn û gelekên din revandi bûn. Di 13 Teşrîn 2015 de, ew ji aliyê Pêşmerge, bi piştgiriya firokeyên hêzên hevbend ên navneteweyî, hati bû rizgar kirin.
*(rudaw.net, 07 û 12.01.2017)*

***PKK naxwaze ku ji Şingalê derkeve***
Encumena Diplomasiyê ya KCKê (Rêxistina Civaka Kurdistanê, ku girêdayî PKKê ye) daxuyand ku çekdarên wê ji bo parastina Kurdên Yezîdî çûn Şingalê û ku heta avakirina birêvebiriyeke otonom li vê navçeyê, ew jê dernakevin.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 09.01.2017)*

***Amerîka : divê ku PKK ji Şingalê derkeve***
Berdevkê hevbendiya navneteweyî li dijî Dewleta Islamî, John Dorrian, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku *"PKK rêxistineke terrorist e û divê ku ji Şingalê derkeve"*.
*(rudaw.net, 13.01.2017)*

***Malbata misilman a 1mîn vedigere Şingalê***
Hêdî hêdî, rûniştevanên Şingalê vedigerin. Ji wan, malbata pêşîn a Kurdên misilman. Ev Kurdên misilman dibêjin ku ew li vê navçeyê bi Kurdên yezîdî re baş dijiyan.
*(rudaw.net, 12.01.2017)*

***PKK dipejirîne ku ji Şingalê derkeve***
***Di 14 Çile 2017 de***, serokwezîrê iraqî Heyder Ebadî bi jimareke berpirsiyarên ewlehiya neteweyî ya iraqî re civiya. Wî ji wan re got ku piştî giftûgoyên bi PKKê re, wê pejirand (qebûl kir) ku xwe ji Şingalê bikişîne. Û wî got jî ku ewê leşkerê tirkî jî xwe ji Başîkê bikişîne.
*(rudaw.net, 15.01.2017)*

***Muxtarê Şingalê : Bitenê rûniştevan dikarin biryar bistînin***
Muxtarê Şingalê, Mehma Xelîl, got ku bitenê rûniştevanên Şingalê dikarin li ser çarenivîsa (qeder) navçeya xwe biryar bistînin.

Di demên dawîn de, berpirsiyarên bilind ên PDKê (Partî Dêmokratî Kurdistan) ji PKKê xwesti bû ku xwe ji vê navçê bikişîne, lê wê hergav daxuyaniyên cihê didan.
*(rudaw.net, 17.01.2017)*

**MÎLÎSÊN ŞÎÎ LI XANEQÎNÊ BI CÎ DIBIN**
***Di 10 Çile 2017 de***, berpirsiyarê Partî Dêmokratî Kurdistana Iraqê ji bo navçeya Xaneqînê, Şêx Cafer Mustafa, daxuyand ku berê rojekê, ***09 Çile***, yekîneyeke girêdayî mîsîlên şîî yên iraqî, Heşdî Şe'bî, gihajt xaçeriya Imam Weys, ku navçeyên Sadiye, Diya û Xaneqînê digihîne hevdu, û ku ew ber bi gundê Belkanê diçe. Serokê vê yekîneyê Kurdekî şîî ye.

Piştî rizgarkirina Kurdistanê ji Dewleta Islamî ji aliyê Pêşmerge, mîlîsên şîî yên iraqî yên Heşdî Şe'bî li hin ciyên Kerkûk, Xaneqîn û Xurmatû bi cî bûn. Ev yek weka gef (tehdîd) tê dîtin.
*(rudaw.net, 10.01.2017)*

**ALMANYA RAHÊNANA PÊŞMERGE JI BO ÇEKKÊN KÎMYAYÎ DIKE**
Ji bo parastina Pêşmerge ji çekkên kîmyayî, Almanya rahênana (tedrîb) 15 ji wan li bal xwe, li bajarê Zonthovinê, li Başûrê welat, dike.
*(rudaw.net, 08.01.2017)*

**KONXULXANEYEKE JAPONÎ LI HEWLÊRÊ**
***Di 11 Çile 2017 de***, konsulxaneyeke japonî li Hewlêrê hat vekirin. Li merasîma vekirinê ev kesahî amade bûn : Serokwezîrê Kurdistanê Nêçîrvan Berzanî, wezîrê dewletê yê japonî ji bo karên dewletê Kentaro Soruna, balyozê (sefîr) japonî li Iraqê Fumio Iwai, cîgirê serokwezîrê Kurdistanê Qubad Talabanî, serokê kabineya serokatiya Kurdistanê Fuad Huseyn, berpirsiyarê pêwendiyên derve yên Kurdistanê Fellah Mustafa, konsulê japonî li Hewlêrê Katsumi, û kesahiyên din ên kurd û biyanî.
*(rudaw.net, 11.01.2017)*

**TIRKIYE LI KURDISTANÊ LI DÛ PKKê DIÇE**
***Di 13 Çile 2017 de***, firokeyên tirkî gundê Seferê, li bajarokê Kanîmasî, ku girêdayî Amedî, li Kurdistana Iraqê, ye bombe kir. Ev yek ji bo lidûketina kampên PKKê. 4 xanî hilweşiyan.

Di nav 15 salên dawîn de, 361 gundên parêzgeha Duhokê, ku li nêzîkî sînorê Kurdistana Tirkiyê ne, ji sedema bombekirinên leşkerê tirkî hatin vala kirin.
*(rudaw.net, 14.01.2017)*

**SEREDANÊN KURDISTANÊ**
***FRANSA***

***Serok François Hollande***



***Di 02 Çile 2017 de***, serokê Fransa **François Hollande**, piştî Bexdadê, çû seredana Kurdistana Iraqê. Ew li firokexaneya Hewlêrê ji aliyê serokwezîrê kurd Nêçîrvan Berzanî hat pêşwazî kirin. Piştre, ew rastî serokê Kurdistanê, **Mesûd Berzanî**, hat. Ew çûn eniya şerrê li dijî Dewleta Islamî, li nêzîkî Mûsilê, û piştre konfêranseke çapemeniyê pêk anî. Ev cara 2mîn e ku Hollande diçe seredana Kurdistanê. Cara yekemîn di 2014 de bû.
*(rudaw.net, 03.01.2017)*

***TIRKIYE***

***Serokwezîr Yıldırım***
***Di 07 Çile de***, piştî seredana Bexdadê, serokewezîrê tirk Binali Yıldırım, tevî şandekê gihajt firokexaneya Hewlêrê. Ew ji aliyê serokwezîrê kurd Nêçîrvan Berzanî, wezîrê hundir Kerîm Sincarî, wezîrê tendurustiyê Rêkewt Reşîd, wezîrê perwerdeyê Piştîwan Sadiq, berpirsiyarê pêwendiyên derve Fellah Mustafa, berdevkê hukûmeta Kurdistanê Seffîn Dizeyî, serokê kabîneya serokatiyê Fuad Huseyn û wergêrê (tercuman) serokê Kurdistanê, Dr. Ebdulselam, hat pêşwazî kirin.

Piştre, Yıldırım rastî serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, hat. Wan pirsên hevpar (muşterek) ên Herêma Kurdistanê û Tirkiyê giftûgo kirin. Li dawiyê, wan konfêranseke çapemeniyê pêk anî.

Berê Yıldırım, serokê Tirkiyê, Recep Tayyıp Erdoğan, û serokwezîrê tirk, Ahmet Davutoğlu, çû bûn seredana Kurdistana Iraqê.

Nimînendeyê (temsîlcî) taybetî yê serokê amerîkî Barak Obama di hevbendiya navneteweyî de, Brett McGurk, daxuya**nd ku ew vê seredanê bilind dinirxîne.**

***Pêwendiyên aborî***
Pêwendiyên aborî di navbera Herêma Kurdistanê û Tirkiyê de piştî 2007 pêş de çûn û asta (sewiye) bazarganiyê gihajt 12 milyar dolar. 1.350 şirketên tirkî li Kurdistanê, di warên ênêrjî, bazarganî, pîşesazî (sinaet), veguhaztin (transport), berhemanîn û êlêktronîkê de kar dikin.

Sêktora herî girîn a ênêrjiyê ye. Kurdistanê bi Tirkiyê re lihevkirineke 50 salan li ser firotina pêtrola xwe ji vî welatî re wajo (imza) kir. Bi ser de jî, di warê gaza sirûştî (tabiî) de, lihevkirineke 26 salan di navbera her du aliyan de heye. Nuha, Herêma Kurdistanê rojane 550.000 bermîl pêtrol dişîne bendava tirkî ya Ceyhanê, û ew jî wê dişîne cihanê.

Piştî kutahbûna (xelasbûn) avakirina boriya gaza sirûştî di navbera her du welatan de, ewê Kurdistan salane 10 milyar m3 ji Tirkiyê re bişîne. Û di 2020 de, ewê ev jimar bigihîje 20 milyar m3.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 08.01.2017)*

***Şanda ENKSê***
***Di 31 Çile 2017 de***, serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, pêşwaziya şanda Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê "ENK-S", bi serokatiya Ibrahîm Biro, kir. Ew li ser civîna Astana, li Kazakistanê (li jêr, nûçeyên navneteweyî, binêre) û çalakiyên ramyariyî (siyasî) û dîplomatîk ên ENK-Sê peyivîn. Berzanî got ku ew bi temamî piştgiriya daxwaziyên Kurdên Sûriyê dike û li ser projeya serxwebûna Kurdistana Iraqê û rola Pêşmerge peyivî. Wî got ku ji bo têkbirina Dewleta Islamî, pêwîstiya cihanê bi gelê Kurdistanê heye û ku ewê Kurdistan tucar beşdar nebe şerrê ta'ifî di navbera sunnî û şîiyan de, ku bûye belayek ji bo aşîtiya navçeyê û cihanê.
*(rudaw.net, 31.01.2017)*

**SEREDANÊN DERVE**

***SWÎSRA : LUTKEYA DAVOSê***

***Berzanî li Lutkeya Aborî ya Cihanî ya Davosê***
Serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, beşdar bû Lutkeya (civîna bilind) Aborî ya Cihanî ya Davosê.

***Di 17 Çile 2017 de***, li derveyî lutkeyê, ew rastî cîgirê serokê amerîkî, Joe Biden, û wezîrê norvêjî yê karên derve, Borge Brende, hat.

***Di 18 Çile de***, ew rastî wezîra alman a parastinê Ursula von der Leyen, wezîra holladnî ya parastinê Jeanine Antoinette Hennis-Plasschert, wezîrê urdunî yê karên derve Eymen Safadî û serokê Azerbaycanê Ilham Aliyev, hat. Evê dawîn Berzanî vexwend (dawet kir) seredana welatê xwe.

Hemî, ji derveyî tiştên din, şerrê li dijî Dewleta Islamî giftûgo kir. Divê ku meriv zanibe ku Almanya yek ji welatên girîngtirîn ên hevbendiya navneteweyî li dijî vê Dewleta Islamî ye û ku ew ji 2 salan û nîv de ji Kurdistanê re alîkariya leşkerî û mirovî pêşkêş dike. Rawêjkarên (şêwirmend) wê yên leşkerî rahênana (tedrîb) Pêşmerge dikin.

Û Berzanî rastî John Watson, birêvebirê giştî yê şirketa amerîkî Chevron hat. Wan hevkariya di warê ênêrjiyê de goftûgo kir.
*(rudaw.net, 18.01; avestakurd.net, 19.01.2017)*

**ŞERRÊ MÛSILÊ**

***Bajarê Mûsilê***
Heta nuha, bi alîkariya firokeyên hevbendiya navneteweyî, leşkerê iraqî çavdêriya (kontrol) 90% ji bajarê Mûsilê kir. Ew di 29 Kanûn 2016 keti bû nav wî, ji bo ku şerrê Dewleta Islamî, ku ew kiri bû paytexta xwe li Iraqê (weka Reqqa li Sûriyê), bike.
*(rudaw.net, 16.01.2017)*

***Bajarokê Til Kêfê***
***Di 19 Çile 2017 de***, piştî 2 meh dorpêçkirin ji aliyê hêzên ewlehiyê, leşkerê iraqî bajarokê Til Kêfê ji Dewleta Islamî, ku ew ji 2014 de vegirti bû, rizgar kir, tê de 50 ji şervanên wê kuştin û 3 bombe pûç kirin. Ev bajarok 18 km li Bakurê Rojavaya Mûsilê ye. Piraniya rûniştevanên wî Filleyên ku dêr û ciyên din ên wan ji aliyê DAIŞê hati bûn têk dan in, lê tê de Kurd û Ereb jî dijîn.

## ÊRÎŞ LI IRAQÊ

***Bexdad***

***Di 02 Çile 2017 de***, du êrîş li ber 2 nexweşxaneyan, li Bexdadê bûn. Bi giştî, 35 kes hatin kuştin û 95 birîndar kirin.

***Di 05 Çile de***, di êrîşeke din li Rojhilata Bexdadê de, 5 kes hatin kuştin û 12 birîndar kirin.

***Di 05 Çile de jî***, êrîşek li taxeke din a Bexdadê bû. 10 kes hatin kuştin û 7 birîndar kirin. Hukûmeta Kurdistana Iraqê ew şermezar kir.

***Di 09 û 10 Çile de***, di 24 demjimêran de, 10 bombe li taxên cihê teqiyan. 20 kes hatin kuştin û birîndar kirin.

***Di 24 Çile de***, erebeyeke bombekirî teqiya. 6 kes hatin kuştin. Birînar ne bûn.

***Di 25 Çile de***, 2 erebeyên bombekirî li du ciyan teqiyan. Bi giştî, 11 kes hatin kuştin û 33 birîndar kirin.
*(rudaw.net, 02.05,06,10, 24, 25.01.2017)*

***Tikrît***

***Di 05 Çile de***, bi şev, êrîşek li ser bingeheke polîs, li bajarokê Ebidelf, bû. 3 têrrorîst xwe teqand. 3 polîs hatin kuştin û 9 birîndar kirin.

***Di 25 Çile de***, Dewleta Islamî êrîşî mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî kir. 2 mîlîs hatin kuştin û 2 birîndar kirin.
*(rudaw.net, 06,25.01.2017)*

## MASRAFA ŞERR 35 MILYAR DOLAR BÛ

***Di 14 Çile 2017 de***, Kongreya Dyalogê ya Bexdadê li parlementa iraqî dest pê kir û ewê 2 rojan bajo (dewam bike).Serok, serokwezîr û serokê parlementa iraqî, û şandeke Kurdistana Iraqê û balyozên (sefîr) welatên biyanî amade bûn.

Serokwezîrê iraqî Heyder Ebadî got ku heta nuha, masrafa şerrê li dijî Dewleta Islamî gihajtiye 35 milyar dolar. Û wî got jî ku Dewleta Islamî tecrube dike ku pevçûnê di navbera mezhebên olî de li Iraqê derxîne û ku ev welat ne bitenê şîî ye.
*(rudaw.net, 14.01.2017)*

## ŞERVANEKÎ ISLAMÎ POŞMAN BÛYE

Servîsên ewlehiyê yên navçeya Kerkûkê mîlîtanekî Dewleta Islamî, yê bi navê Ebû Ehmed, ku bombe çêdikirin û ku dixwest ku xwe di nav penaberan de veşêre, ragirt. Wî itiraf kir ku piştî rahênaneke (tedrîb) 10 rojan, wî rojane ji 10 heta 15 bombe çêdikirin û ku ew gelek poşman bûye.

Heta nuha, nêzîkî 50.000 penaberên Hewîcê li kampên Kerkûnê hene.Di 2 mehan de, ji 60 şervanên Dewleta Islamî bêtir li van kampan hatin ragirtin.
*(rudaw.net, 31.01.2017)*

## AMNESTY INTERNATIONAL

***Tawanbarkirina mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî***

Amnesty International rapporek li ser mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî weşand. Ew tê de wan bi êşkence û revandina bi hezaran sîvîlên iraqî, jin û mêr, tawanbar dike.Û ew tê de dibêje jî ku ev mîlîs çekkan ji 16 dewletan re, ku ji wan Amerîka, Rûsya û Îran, distînin.
*(rudaw.net, 05.01.2017)*

## TIRKIYE

***Kurdistan 2mîn navenda bazarganiyî ye***

Tirkiye Kurdistana Iraqê weka 2mîn navenda bazarganiyî, piştî Almanya, dibîne. Berê şerrê li dijî Dewleta Islamî, firotina salane ya Tirkiye û Kurdistana Tirkiyê ji Kurdistana Iraqê re digihajt 12 milyar dolaran. Lê, piştî şerr, ev jimar daket 7 milyaran.
*(rudaw.net, 11.01.2017)*

## ÎRAN

***Konsulxaneyên li Kurdistanê ji bo Îranê metirsî ne!***

Fermandarê servîsên ewlehiyê yên îranî (Pasdar) li parêzgeha Sinê, li Kurdistana Îranê, Muhammed Huseyn Racabî, hebûna jimareke mezzin ji konsulxaneyên biyanî li Kurdistana Iraqê rexne kir û got ku ev yek ji bo Îranê metirsî (tehlike) ye! Wî got ku hebûna ji 30 konsulxane bêtir li vê navçeyê ne sirûştî (normal) ye û ku piraniya wan ji bo kirina sîxuriyê (casûsî) hatine vekirin. Wî bi taybetî konsulxaneya Erebistana Suûdî tawanbar (ittiham) kir û got ku divê ku ew bê girtin.

Berpirsiyarê buroya pêwendiyên derve yên Herêma Kurdistana Iraqê, Fellah Mustafa, bersîva vî fermandarê îranî da û ji ajansa Rûdawê re got ku ew şaş maye ku welatên hevsî (cîran) xwe bixin nav karên hundirî yên Kurdistanê û jê re riya ku divê ku ew tê de biçe nîşan bidin. Û wî got jî ku ev konsulxane bi hemahengiya (koordînasyon) bi Bexdadê re hatine vekirin û ku divê ku welatên hevsî nelihevkirinên xwe neynin Kurdistanê (Îran û Erebistana Suûdî, şîî û sunnî). *(rudaw.net, 15.01.2016)*

# KURDISTANA ÎRANÊ

## 6 CUHANÊN KURD TÊN TAWANBAR KIRIN

***Di 24 Çile 2017 de***, Dadgeha Şorşger a Urmiyê, 6 cuhanên kurd, yên 11-20 salî, tawanbar kirin. Ew bi alîkirina Pêşmergeyên Partî Dêmokratî Kurdistan "PDKÎ" û bi dijminahiya Komara Islamî hatine tawanbar kirin.

Yek ji van 6 cuhanan, hukmê îdamê stend û yên din cezayên zîndanê, di navbera 11 û 20 salan de, stendin.
*(rudaw.net, 27.01.2017)*

## PIRSA AVÊ

Bi avakirina 33 bendavan li ser çemmên parêzgeha Sinê, hukûmeta îranî çavdêriya vê navçeyê dike. Ev bendav nahêlin ku gundî av bidin erdên xwe. 700 gund li bin metirsiya (tehlike) zuhabûnê ne û rûniştevanên wan ber bi bajaran direvin.

Parlementerên kurd li parlementa îranî vê rewşê riswa (protêsto) dikin.
*(rudaw.net, 07.01.2017)*

## MANGIRÊN BIRÇÎBÛNÊ DI METIRSIYÊ DE NE

Du rapportorên taybetî yên UNê ji bo mafên mirov li Îranê, Banû Esma Cihangîr û Michel Frest, daxuyaniyeke hevpar kir û tê de got ku ji çend hefteyan de, ji kêmasîve 8 girtî, çalakvanên mafên mirov, li zîndanên îranî mangirtina (grêv) birçîbûnê dikin, ji bo riswakirina (protêsto) ragirtinên ne yasayî û xwestina alîkariya bijîjkî (tibbî).
*(rudaw.net, 11.01.2017)*

## VEKIRINA DERIYÊN SÎNORÎ

***Di 15 Çile 2017 de***, muxtarê Qesrî Şîrîn, ê parêzgeha Kirmanşahê, daxuyand ku deriyê sînorî bi Kurdistana Iraqê re, Perwîzxan, ji nuha û şûn de ewê ji kolberan re vekirî be û ku ewê mafê wan hebe ku rojane barên bi nirxê (qîmet) 20 milyon tumen (pereyê îranî) derbas bikin.
*(rudaw.net, 15.01.2017)*

## GUND VALA DIBIN

Li gora statîstîkan, di salên dawîn de, 33.000 gund, li tevayiya Îranê, vala bûne û rûniştevanên wan li bajaran bi cî bûne. Lê, li wan deran, ew rastî pirsên mezzin tên û di taxên hejar (feqîr) de dijîn. Sedema vê çûnê nebûna riyan, av û êlêktrîkê ye. Ev yek, li gel projeyên cihê ku di salên dawîn de ji aliyê hukûmeta îranî hatine pêşkêş kirin.

Li gundên parêzgeha Sinê bitenê kesên pîr û zarok mane.
*(rudaw.net, 16.01.2017)*

## 10 MIRÎ DI BAHOZEKE BERFÊ DE

Li gundê Bêwiranê, yê girêdayî Serdeştê, 3 kolber di bahozeke berfê de mirin û 12 jî ji aliyê yaneyên (équipes) hawarçûnê hatin kutah (xelas) kirin.

Di şeva 30 Çile de, 3 kolberên din di nav berfê de, li Pîranşarê, man. Ev navçeyeke çiyayê Sê Çoman e û li nêzîkî Kurdistana Iraqê ye. 2 ji wan hatin kutah kirin, lê 1 mir.

***Ji 27 Kanûn 2016 de***, bi giştî, 10 kes ji sedema berfê mirin.
*(rudaw.net, 29 û 31.01.2017)*

# KURDISTANA SÛRIYÊ

## DÛMAHÎKA ŞERRÊ LI DIJÎ DAIŞê Û YÊN DIN

***Navçeya Dêrikê***
***Di 26 Çile de***, leşkerê tirkî gundê Mezrê bombe kir. 2 sîvîl hatin kuştin û 5 birîndar kirin.
*(rudaw.net, 27.01.2017)*

***El-Bab - Efrîn***
Bi pêlan, penaber ji El-Babê, navçeyeke sînorî ya nêzîkî Tirkiyê û li Bakurê Helebê, ber bi Efrînê direvin. Di 48 demjimêran de, nêzîkî 1.000 kes, ku piraniya wan jin û zarok in, gihajtin kampên penaberan ên Rûbar û Şehba, li bajarokê Şêrawa, yê girêdayî Efrînê.
Ev penaber ji pevçûnên di navbera hêzên bi navê "Mertala Firatê", ku Tirkiye piştgiriya wan dike, de direvin. Divê ku meriv zanibe ku ji 25 Gulan 2016 de, Efrîn pêşwaziya penaberên navçeyên cihê yên Sûriyê dike.
*(rudaw.net, 28.01.2017)*

***Kurdistana Iraqê : Pêşmergeyek tê kuştin***
***Di 18 Çile 2017 de***, Muhammed Emîn Silo, yek ji 6.000 Pêşmergeyên Kurdistana Sûriyê, ku li tenişta Pêşmergeyên Kurdistana Iraqê, şerrê Dewleta Islamî dikin, li eniya Askê, li nêzîkî Mûsilê, hat kuştin.
*(rudaw.net, 19.01.2017)*

***Reqqa : Amerîkiyekî YPG tê kuştin***
Navenda agahdariyê ya YPG (şervanên kurd) daxuyand ku amerîkiyekî bi navê Paulo Tode, ku navê Kawa Amed lê hati bû kirin, di Teşrîn 2016 de xwe gihandi bû hêzên YPG. Ew li gundê piçûk ê Dwêdîka, li Bakurê bajarê sûrî yê Reqqa (paytexta Dewleta Islamî li Sûriyê), hat kuştin.
*(avestakurd.net, 22.01.2017)*
***Idlib : Berpirsiyarekî bilind ê islamî tê kuştin***
Firokeyeke ku tê pêşbînî (texmîn) kirin ku amerîkî bû, Ebû Umer El-Tirkistanî, berpirsiyarkî bilind ê koma islamî Fetih El-Şam, ku bi navê Eniya El-Nusra tê nas kirin, bombe kir û ew kuşt.

Êrîş li ser erebeyekê, li ser riya Idlib-Bab El-Hawa, bû. 4 kesên ku tê de bûn mirin.

***Ezaz : 60 mirî***
***Di 07 Çile 2017 de***, erebeyeke bombekirî li bajarokê Ezazê, yê girêdayî Helebê û nêzîkî sînorê tirkî, teqiya. 60 kes hatin kuştin û bi dehan birîndar kirin.
*(rudaw.net, 02, 07.01.2017)*

***Êrîş li Şamê : 7 mirî***
***Di 12 Çile 2017 de***, bi şev, êrîşek li Şamê, li nêzîkî stadyuma werzişê (sport), li taxa Kefer Sûsê, bû. 7 kes hatin kuştin û çend jî birîndar bûn. *(rudaw.net, 12.01.2017)*

***Tirkiye Amerîka bi alîkirina YPG tawanbar dike***
Serokwezîrê tirk Binali Yıldırım birêvebiriya serokê amerîkî Barak Obama, di civîneke koma xwe li parlementa tirkî de, rexne kir. Wî got ku Amerîka çekkan dide YPG (Yekîneyên Parastina Gel, ên partiya PYD) û PYD (Partiya Yekîtiya Dêmokratîk, ku girêdayî PKKê ye), ji bo ku ew li Tirkiyê têrrorîsmê bikin. Wî hêvî kir ku serokê ku ewê ciyê wî bistîne (Donald Trump) vê "siyaseta qeşmer" biguherîne. Wî anî bîran ku ji salan de ye ku Tirkiye endama NATO ye û ku ew beşdar dibe şerrê li Afxanistanê.
*(rudaw.net, 03.01.2017)*

***PYD : Nuha divê ku Esed li desthilatê bimîne***
***Di 27 Çile 2017 de***, nimînendeyê (temsîlcî) Birêvebiriya Xweser a Bakurê Sûriyê (ya partiya kurdî PYD), Ebdul-Selam Elî, li Mosko rastî wezîrê rûsî yê karên derve, Sergey Lavrov, hat. Wî jê re got ku divê ku serokê sûrî Beşşar El-Esed hîn demeke din jî li desthilatê bimîne, heta destpêka qonaxa veguhêz (merheleya derbasbûnê) û nivîsîna destûreke nuh. Ev yek ji bo ku rewş dikare gelek têk biçe (xerab bibe) û komên islamî dikarin Sûriyê bikin weka Lîbya, Yemen û Somalya.

Wî ji rojnamevanan re daxuyand ku : *"Ewê bitenê fêderalîsm karibe pirsên Sûriyê çare bike. Nuha, Sûriye jixwe perçe bûye. Loma, divê ku em awayekî din bibînin ku wê yekgirtî bihêle, lê ku tê de mafên hemî kesan yek bin"*
*(rudaw.net, 27.01.2017)*

## PYD LI DIJÎ KURDÊN DIN

***Girkê Legê***
***Di 03 Çile 2017 de***, komeke 6 kesên rûgirtî Sîdad Ehmed Seyid Mecîd, endamê ENK-Sê (Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê, ku tê de partiyên kurdî yên ne girêdayî PYD hene), û xwendekarekî pola (sef) 3mîn a yasayê revandin. Wê ew birin ciyekî nêzîkî Rimêlanê, ew gelek êşkence kirin û piştre avêtin ser riyeke vala. ENK-Sê got ku ev kirina Cuhanên Şoreşger, ên partiya PYD, bû.
*(avestakurd.net, 04.01.2017)*

***Qamişlî***
Cuhanekî 14 salî, Mahir Cum'a Şêxî, ji Hezîran 2016 de hunda bû. Malbata wî dibêje ku YPG ew çend caran biri bû û ku bavê wî ew vegerandi bû.
*(avestakurd.net, 08.01.2016)*

***Dêrik***
Di 24 Teşrîn 2012 de, endamekî polîtburoya Partiya Dêmokratîk a Kurdî li Sûriyê (PDK-S), Behzad Dursin, tevî hevalê xwe Nidal Selîm, hati bû revandin. Heta nuha çarenivîsa (qeder) wî ne diyar e. PDK-S bi vê yekê PYD tawanbar dike.
*(rudaw.net, 01.11.2016)*

***Zîndana PYD***
Sekreterê polîtburoya PDK-Sê, Muhammed Ismaîl, li zîndaneke PYD dimîne, ji bo ku ew beşdar bû bû şîna Pêşmergeyekî Kurdistana Sûriyê, ku li Kurdistana Iraqê şerr kiri bû. Ji sedema nexweşiya wî, PYD xwest ku wî bi awakî demkî (muweqqet) azad bike, ji bo ku bijîjk (doktor) lêbinêre, lê wî ev yek red kir.
*(rudaw.net, 13.01.2017)*

***Daxuyaniya Berzanî***
Rawêjkarê (muşawir) Encumena Ewlehiya Kurdistana Iraqê, Mesrûr Berzanî, ji şandê taybetî yê Hollanda ji bo karên Sûriyê, Gerard Steeghs, re daxuyand ku divê ku partiyên kurdî yên Sûriyê rûmeta (hurmet) lihevkirinên hevkariyê, ku wan li Hewlêr û Duhokê wajo (imza) kiri bun, bikin.
*(avestakurd.net, 19.01.2017)*

**XWEPÊŞANDAN LI QAMIŞLÎ LI DIJÎ PYD**




Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê (ENK-S) li ber buroya U.N.ê li Qamişlî xwe pêşan da, ji bo xwestina azadkirina endamên xwe, ku li zîndanên PYD ne.

Ji xwepêşandiyan, serokê ENK-Sê, Muhammed Ismaîl, ku berê 3 rojan ji aliyê PYD hati bû azad kirin, hebû.
*(rudaw.net, 21.01.2017)*

**SÛRIYE MÛÇEYÊN 4.000 KURDAN DIBIRRE**
Li gora Birêvebiriya Perwerdeyê ya Parêzgeha Hesîçê, hukûmeta sûrî nema mûçeyên (meaş) 4.000 karmendên vê navçeyê dide. Sedema vê yekê ew e ku van kesan ne xwest ku bikevin nav mîlîsên leşkerê sûrî. Ev mîlîs di Teşrîn 2016 de ji aliyê hukûmeta sûrî hati bûn pêk anîn.
*(rudaw.net, 05.01; avestakurd.net, 06.01.2017)*

**ŞANDEKE HUKÛMETA SÛRÎ LI QAMIŞLÎ**
***Di 20 Çile 2017 de***, şandeke bilind a partiya sûrî ya desthilatê, Baas, gihajt firokexaneya Qamişlî. Li firokexaneya Şamê, serokê şandê, Dr. Xelef El-Muftah, daxuyand ku ewê kongreyên gelerî yên vê partiya Baas li Qamişlî û Hesîçê pêk bîne û ku ewê rewşa ramyariyî (siyasî) û aborî ya parêzgeha Hesîçê (Kurdistana Sûriyê) binirxîne û baştir bike.

Ji berê jî, berpirsiyarên hukûmeta sûrî çû bûn Kurdistanê. Lê vê carê, Kurdistan li bin Birêvebiriya Xweser a partiya kurdî PYD ye. Di kongreya xwe ya dawîn de, PYD navê vê navçeyê kiri bû "Fêderalîsma Bakurê Sûriyê". Hukûmeta sûrî ne Birêvebiriya Xweser, ne jî Fêderalîsma Bakur dipejirîne (qebûl dike), û serokê sûrî Beşşar El-Esad û berpirsiyarên din en sûrî yên bilinddijîbûna xwe li hemberî wan daxuyandi bû.
*(rudaw.net, 20.01.2017)*

**GOREKE BI KOM LI HELEBÊ**
Berpirsiyarê şanda sûrî li bal U.N.ê, Munzir Munzir, nameyek ji serkreterê giştî yê vê rêxistinê, Antonio Guterres, re şand û tê de got ku goreke bi kom, ku tê de laşên 23 serbazên (esker) sûrî hene, li bexçeya dibistanekê, li taxa sukkerî ya Helebê, hat dîtin.

Munzir got jî ku laşên 37 sîvîlan, ku piraniya wan serê wan hatiye jêkirin, li heman (eynî) taxê hatin dîtin.
*(rudaw.net, 20.01.2017)*

**TIRKIYE**

***"Siyaseta me li hemberî Sûriyê şaş bû"***
Berdevkê hukûmeta tirkî, Numan Kurtulmuş, di konfêranseke çapemeniyê de got ku siyaseta Tirkiyê li hemerî Sûriyê şaş bû û ku ew bixwe ji destpêkê de li dijî wê bû. Û wî got jî ku nuha Tirkiye dixwaze ku van şaşiyan rast bike û ku wê li ser borana "krîz" Helebê û tevayiya Sûriyê bi Rûsya re li hev kir.

Kurtulmuş welatên rojavayî bi xwestina guherandina jêo-polîtik a vê navçeyê, ji aliyê zimanan û gelan, û bi bicîkirina Peymana 2mîn a Sykes-Picot li wê derê tawanbar kirin.(Tirkiye ji xwe-idarekirina li Kurdistana Sûriyê ne razî ye. Buroya Kurdî).
*(rudaw.net, 05.01.2017)*

***Rewşa xerab a penaberan li Izmirê***
Nêzîkî 600 penaberên sûrî, ku piraniya wan Kurd in, li bajarokê geştyariyî (tûrîstîk) yê Foça, girêdayî Izmirê, dijîn. Xaniyên wan nîv hilweşiyayî ne û berf û baran dikevin nav wan. Li nav hin ji wan, 40 penaber bi cî bûne. Hemî ev penaber tankêreke tenê ya avê û destavekê (toilette) pay dikin. Ava gemmar li kuçan

diherike û zarok, bi solên kevn û cillên qetiyayî, tê de dilîzin.
Zilam û hin jin karên demsalî (mewsimî) li rezzan dikin. Lê mûçeyên (meaş) wan têra nîvê masrafên wan nakin û pêwîstiya wan bi alîkariya mirovî heye.
*(rudaw.net, 12.01.2017)*

***Leşkerê tirkî dikeve nav Efrînê***
Servîsên ewlehiyê yên kurdî, Asayiş, daxuyand ku leşkerê tirkî ket nav Efrînê û tê de 1.300 darên zeytûn jêkirin. Hin guwah (şahid) dibêjin ku ew dixwaze ku tê de dîwarekî ava bike (Efrîn gelek nêzîkî sînorê Kurdistana Tirkiyê ye).
*(rudaw.net, 15.01.2017)*

***Leşkerê tirkî dîwarekî li Eyn Dîwerê ava dike***
Leşkerê tirkî dest bi avakirina dîwarekî li nêzîkî çemmê Diclê, li Bakurê gundê Eyn Dîwerê, ku girêdayî Dêrikê ye, kir. Ev avakirin ji bo 250 hêktar erdên çandinê, û pira dîrokî ya Bafidê ku bi peykeran (heykel) xemilî ye, metirsî (tehlike) ye. Ev pir di 1164 de, di dema sultanê kurd ê navdar Selaheddînê Eyyûbî de hati bû ava kirin. Têkbirina (xerabkirin) wê ji bo Kurdistanê xesareke sembolîk a mezzin e.
*(rudaw.net, 20.01.2017)*

***Lihevkirineke rûsî-tirkî li ser Sûriyê***
***Di 12 Çile 2017 de***, wezareta rûsî ya parastinê daxuyand ku welatê wê bi Tirkiyê re li hev kir ku hemahegiya (coordination) êrîşên xwe yên ezmanî li Sûriyê, li dijî Dewleta Islamî, bikin.
*(rudaw.net, 12.01.2017)*

**ÎRAN**

***Bersîvdayîna Tirkiyê***
Wezîrê tirk ê karên derve, Mevlut Çavuşoğlu, ji Îranê xwesti bû ku nehêle ku mîlîsên şîî li Sûriyê çalak (aktîf) bin, ji bo ku tê de agirbirrînek bê kirin.

***Di 05 Çile 2017 de***, di daxuyaniyeke çapemeniyê de, Îranê bi tundî bertek (réaction) ji vê daxwazê re da û hebûna van mîlîsan inkar kir. Berdevkê wezareta îranî ya karên derve, Behram Qamisî, got ku welatê wî pabendî (girêdayî) lihevkirina sêaliyî di navbera Îran, Rûsya û Tirkiyê de, li ser bicîkirina agirbirrînê li Sûriyê, ye.
*(rudaw.net, 05.01.2017)*

**RÛSYA**

***Rûsya hêzên xwe dikişîne***
Fermandarê leşkerê rûsî, Valeryi Gerasimov, daxuyand ku ewê leşkerê wî xwe ji Sûriyê bikişîne û bi keştiya (gemî) xwe "Kuznetsov", ku li Deryayê Sipî ye, dest pê bike. Ev yek, li gora lihevkirinekê di navbera Îran, Tirkiye û Rûsya de, li ser agirbirrînê li Sûriyê.
Rûsya êrîşên xwe yên ezmanî li Sûriyê di Îlon 2015 de dest pê kiri bûn , û piştre leşkerê xwe şandi bû wê derê. Di Adar 2016 de, wê biryar stend ku van hêzan bikişîne, lê ku êrîşên ezmanî bajo (dewam bike).
*(rudaw.net, 06.01.2017)*

**ALMANYA**

***Banga Brêmênê***
Ji 200 kesahî (şexsiyyet) bêtir bangeke dyalogê di navbera partî û rêxistinên kurdî yên Sûriyê, ku ji bajarê Brêmênê hat kirin, wajo (imza) kir. Ev înîsyatîv ji aliyê jimareke çalakvanên ramyariyî (siyasî) û sîvîl, rojnamevan û ronakbîrên kurd hat stendin û di metn (texte) de 10 xal hene.
*(avestakurd.net, 15.01.2017)*

**U. N.**

***Banga alîkariya mirovî***
UNê bangî agirbirrînekê li Sûriyê kir, ji bo ku ew karibe alîkariya xwe ya mirovî bigihîne xelk. Ew tê de dibêje ku 700.000 kes çikkiyane û ji vê alîkariyê bêpar (mehrûm) in û ku pêwîstiya zarokên nexweş bi alîkariya derûnî (psychologique) heye.
*(rudaw.net, 16.01.2017)*

**LIHEVKIRINA ASTANA (KAZAKISTAN)**
***Di 23 û 24 Çile 2017 de***, civînek li ser rewşa Sûriyê, di navbera Tirkiye, Rûsya û Îranê de, li Astana, paytexta Kazakistanê, bû. Wan binpêkirina agirbirrînê ji aliyê hukûmeta sûrî giftûgo kir û biryar stend ku mêkanîzmeke sêaliyî li ser vê yekê deynin.

Dijberiya sûrî ya erebî, û ya kurdî "ENK-S", hatin vexwendin vê civîne. Lê YPG ne hat vexwendin. YPG ev yek riswa (protêsto) kir û got ku ewê pabendî (girêdayî) biryarên Astana nebin.

Nimînendeyê (temsîlcî) hukûmeta sûrî li vê civînê, Beşşar El-J'aferî, vexwendina serokê dijberiya sûrî ya erebî, Muhammed Ellûş, vê civînê rexne kir û got : *"Ji bo me "surprîz"ek bû ku serokê komên terrorist amade be. Em ne hatine vira ji bo ku em bi têrrorîstan re bicivin".*

Otêla 5 stêrkan, ku tê de ev civînên fermî (resmî) bûn, a bazarganekî kurd, ê bajarê Wanê, li Kurdistana Tirkiyê, ye.
*(rudaw.net, 23, 24 û 29.01.2017)*

# NÛÇEYÊN NAVNETEWEYÎ

**TIRKIYE**

***Spasîkirina Kurdistana Iraqê***
Cîgirê serokwezîrê tirk û berdevkê hukûmeta vî welatî, Numan Kurtulmuş, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku pêwendiyên di navbera Tirkiye û Bexdadê de baştir bûne û ku Hukûmeta Kurdistana Iraqê di vê yekê de roleke mezzin lîzt.
*(rudaw.net, 06.01.2017)*

**HUMAN RIGHTS WATCH**

***Tirkiye di nav boraneke mezzin de ye***
Rêxistina navneteweyî ya mafên mirov, Human Rights Watch, rappora xwe ya 2016, ku ji 687 rûpelan pêk hatiye, weşand. Li ser Kurdistana Tirkiyê, ew tê de dibêje ku hukûmeta tirkî tevgera siyasî ya kurdî bi tundî dipelixîne û parlementer û şaredarên ku ji aliyê xelk hatine hilbijartin dixe zîndanan.
*(rudaw.net, 13.01.2017)*

# NÛÇEYÊN ÇANDÎ YÊN KURDÎ LI CIHANÊ

**AMERÎKA**

***Kurdek baştirîn karsaz e***
Kovara amerîkî ya karsazan (businessmen) a navdar, Fast Company, lîsta Baştirîn 10 Karsazan di 2016 de weşand. Ji wan, karsazê kurd Hamdî Ulukaya, ji Kurdistana Tirkiyê, yekemîn hat hilbijartin.

Ulukaya li Amerîka dijî û xwediyê şirketeke mast, a bi navê "Çobanî", ye.
*(rudaw.net, 06.01.2017)*

***Xelat ji hunermendekî kurd re***
Ahmet Güneştekin hunermendekî (ressam) ji Kurdistana Tirkiyê ye. Ew li New Yorkê dijî û tê de pêşangeheke bi navê "Geştek (gerr, siyahet) ji Rojhilat ber bi Rojava" li Malrborough Gallery, ***di 11 Çile 2017 de***, vekir. Wî xelata baştirîn hunermend, a malpera navdar Artnet New, stend û çapemeniya amerîkî li ser wê gelek peyivî.Di pêşangehê de 43 tablo hene û ewê heta 04 Sibat 2017 bajo (dewam bike).Güneştekin ji salên dirêj de wêneyan (resm) çêdike.Wî pêşangeh li gelek welatan vekirin û tabloyên wî ciyekî girîng di cihana navneteweyî ya huneran de distînin.
*(rudaw.net, 15.01.2017)*

***Boksorekî kurd 38mîn car bi ser dikeve!***
Boksorê kurd Maaz Akdeniz li New Yorkê hevrikê (reqîb) xwe yê amerîkî şikand. Ji 41 caran, 38mîn car e ku ew xelatan distîne. Akdeniz 19 salî ye, ji Kurdistana Tirkiyê (Amed, Diyarbekir) e û li Kanada dijî.Ew xwendekarê dibistana polîs a Montreal e.
*(rudaw.net, 24.01.2017)*

**KURDISTANA IRAQÊ**

***Ermenî Noêlê pîrzo dikin***
Ermeniyên ku li bajarokê Zaxo, li nêzîkî bajarê Duhokê, dijîn cêjna fille "Noêl"ê li dêrekê pîroz kir û bi ermenî stira. Piştre, wan pîrozkirinê li malên xwe ajot (dewam kir) û pêşwaziya mêvanan, ku ji wan ên misilman, kir.

Ji bo ku Ermenî ortodoks (ne katolîk) in, ew Noêlê di 06 Çile (January) de, dêlva 25 Kanûn (Decembre), pîroz dikin. Li Zaxo nêzîkî 200 malbatên ermenî hene. Dêra wan di 1968 de hati bû ava kirin.
*(rudaw.net, 07.01.2017)*

***Xelata Filleyên Cihanê ji jina Celal Talabanî re***
Hêro Talabanî jina Celal Talabanî, sekreterê giştî yê partiya Yekîtî Niştimanî Kurdistan û serokê Iraqê yê berê, ye.Di merasîmeke mezzin de, wê Xelata Filleyên Cihanê ya 2017, li dêra Mar Yûsuf, li bajarê Suleymaniyê, stend.Nimîndendeyê (temsîlcî) Vaticanê tê de got ku : *"Ji sedema alîkariya wê ji zarokan re, rûmeta (hurmet) wê ji mafên mirov û jinan re, tecrubeyên wê yên bihevrejiyanê, alîkariyên wê ji penaberan re û*

*gavên wê ber bi dyaloga di navbera olan de, em îsal Xelata Filleyên Cihanê didin wê".*

Ev xelat ji 20 salan de tê dayîn. Lê ev cara yekemîn e ku ew ji jinekê re tê dayîn (Hêro Talabanî ne fille ye. Ew Kurd e).
*(rudaw.net, 15.01.2017)*

***Zanîngeha Duhokê yekemîn e***
Serokê Zanîngeha Duhokê, Prof. Dr. Muslih Duhokî, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku di yariyeke (musabeqe) navneteweyî ya zanîngehên li cihanê de, ku ji aliyê Google Saiteihen hat pêk anîn, zanîngeha Duhokê 1mîn li asta Kurdistana Iraqê û 5mîn li asta Iraqê hat hilbijartin. Divê ku meriv zanibe ku li Iraqê ji 100 zanîngeh bêtir hene.

Zanîngeha Duhokê di 1992 de hat ava kirin û nuha beşên wê li bajarên cihê yên vê parêzgehê hene. 17 beşên (kollêj) û 20.000 xwendekarên wê hene.
*(rudaw.net, 17.01.2017)*

***Pêşangeh li Kela Hewlêrê***
5 wênekêşên (ressam) kurd û iraqî pêşangehek li kela Hewlêrê, bi navê Ciwaniyên Veşartî, pêk anî. Ew wêneyên Iraqê berê û piştî şerrê li dijî Dewleta Islamî nîşan dide.

Serokwezîrê Kurdistanê, Nêçîrvan Berzanî, tê de peyivî û got ku : *"Çand zimanekî ye ku meriv dikare pê girêdanan bi cihanê re bike. Ji aliyê çand û dîrokê, Iraq jî welatekî dewlemend e"*. Pê re, cîgirê wî Qubad Talabanî, û parêzgarê Hewlêrê, Newzad Hadî, hebûn.
*(rudaw.net, 19.01.2017)*

***Cuhanek serweteke mezzin dibîne û dide polîs***
Cuhankê kurd Zana Zekî, ji bajarê Duhokê, di çenteyekê de, li "ascenceur"a avahiya "Evro City", 110 dolar, 10 milyon dînarên iraqî û zêrê bi nirxê 54.000 dolaran dîtin. Wî ew da polîs.

Ji sedema vê yekê, çend rêxistinên sîvîl û hukûmî xelat dan wî û torên civakî li ser wî peyivîn.

Zana cuhanekî ne zewicî ye û ji malbateke ne dewlemend e. Wî ji ajansa Rûdawê re got ku di destpêkê de wî gûman kir ku di navtûr (kîs) de bombeyek heye, lê ku dema ku wî ew hejand, têgihajt ku ew pere û zîr in. Bê ku wî veke, ew da polîs.
*(rudaw.net, 24.01.2017)*

***3mîn Fêstivala hunerî li Halabca***
3mîn fêstivala hunerî, ya bi navê "Dengên Ciyawaz", li bajarê Halabca bû. 12 hundermend û helbestvan, ji her 4 perçeyên Kurdistanê, stran, dîlan û helbest pêşkêş kirin. Fêstival ji aliyê rêxistina cuhanan, Hîwa, û birêvebiriya çandî û hunerî ya navçeya Şerezûrê hat piştgirî kirin.
*(rudaw.net, 27.01.2017)*

**KURDISTANA SÛRIYÊ**

***Stranbêjeke jin bi 5 zimanan distirê***
Stranbêj Alîn albumeke 10 stranan, bi 5 zimanan : kurdî, erebî, almanî, rûsî û suryanî, amade dike.
*(rudaw.net, 10.01.2017)*

***Fîlmeke belgeyî li ser Kobanî***
Derhêner Rêber Doskî, ji Kurdistana Iraqê, fîlmeke belgeyî li ser trajêdiya bajarê Kobanî, ku ji aliyê Dewleta islamî hat têk birin, çêkir. Navê wê "Radio Kobanî" ye û ewê beşdar bibe Fêstivala Navneteweyî ya Fîlma Belgeyî li Amsterdamê, ku ewê ji 16 heta 27 Teşrîn 2017 bibe.
*(rudaw.net, 17.01.2017)*

***3 rojên çandî li Qamişlî***
Yekîtiya Nivîskarên Kurdistana Sûriyê dest bi amadekirina 3 rojên çandî li Qamişlî kir. Roman û helbest ewê bên xwendin û li ser rewşa ziman û çanda kurdî li Kurdistana Sûriyê were axaftin.
*(rudaw.net, 18.01.2017)*

**KURDISTANA SÛRIYE-IRAQÊ**
Saman Şêxo, 19 salî, cuhanek ji Kurdistana Sûriyê ye, lê li Hewlêrê dimîne. Birêvebiriya yaneya (firqe) ispanî ya futbolê, "Real Madrid", ew nimînendeyê (temsîlcî) xwe li Kurdistana Iraqê nîşan kir (ta'yîn kir).
*(rudaw.net, 16.01.2017)*

**KURDISTANA TIRKIYÊ**

***89 xelatên navneteweyî ji fotokêşekî re***
Fêdêrasyona Navneteweyî ya Hunermendên Fotoyan (AFIAD) li Amedê (Diyarbekir) bawernameyek (diplôme) da fotokêş (photographe) Masum Suer.

Heta nuha, Masum beşdar bûye 12 pêşangehên navneteweyî yên fotoyan. Ji salên 1990 de, wî 89 xelatên navneteweyî stendine. Wî ji ajansa

Rûdawê re daxuyand ku amanca wî nasandina çand û hunera kurdî ji cihanê re ye.
*(rudaw.net, 13.01.2017)*

***Çiyahilkêşekî (alpînîst) 61 salî***
Sidiq Cantimur 61 salî ye. Ev cara yekemîn e ku ew li stasyoneke berfê ku 35 km ji Çewlikê (Bingöl) ye sky "skî" dike. Jêhatîbûna wî bala gelek kesan kişand. Wî got ku dema ku ew piçûk bû, li ser textekî dişimitî, lê ku cihêtî (ferq) di nav bera text û skî de gelek mezzin e.
*(rudaw.net, 15.01.2017)*

***Nexweşxaneyek ji bo lawiran***
Cara yekemîn li Kurdistanê, nexweşxaneyek ji bo lawiran (heywan) li bajarokê Tetwanê, yê girêdaqyî Bedlîsê (Bitlis), hat vekirin. Ew bi alîkariya lawirhezan û şaredariya Tetwanê hat vekirin. Lawirên bê xwedî, nexweş yan ku erebeyan li wan xistiye tê de tên derman kirin.
*(rudaw.net, 24.01.2017)*

**KATALONYA (Ispanya)**

***Nadya Murad ji aliyê Lionel Messi û Luis Suarez tê pêşwazî kirin***
***Di 12 Çile 2017 de***, keça kurd a yezîdî, Nadya Murad, ku ji aliyê U.N.ê Balyoza Niyyeta Baş hatiye dest nîşan dan (li bultenên me yên buhurî binêre), çû seredana yaneya katalanî ya futbolê û ji aliyê berpirsiyarên wê, ku ji wan her du stêrk Lionel Messi û Luis Suarez, hat pêşwazî kirin.

Di 2004 de, Nadya Murad ji aliyê Dewleta Islamî li Şingalê, navçeya Kurdên yezîdî li Kurdistana Iraqê, hati bû revandin. Piştî azadkirina wê, ew ji aliyê U.N.ê Bayloza (sefîr) Niyyeta Baş hati bû dest nîşan dan. Di 13 Kanûn 2016 de, wê Xelata Sakharov a Parlementa Ewropî stend.
*(rudaw.net, 13.01.2017)*

**ÎRAN**

***Stranbêjeke îranî bi kurdî distirê***
Neda Fars stranbêjeke îranî ji Tehranê ye. Nuha, ew li Kurdistana Iraqê dijî. Wê got ku ew ji stranên kurdî hez dike û ku nuha "klip"eke kurdî amade dike. Gotin û muzîka wê ji aliyê hundemendê kurd Helkeft Zahir hatine amade kirin.
*(rudaw.net, 17.01.2017)*

**GURCISTAN – RÛSYA**



***Sopranoyeke navdar a Kurda Yezîdî***
Sporanoya kurd a yezidi, Svetlana Kasyan, li Batumê, li Gurcistanê, di 1986 de bûye. Nuha, ew li Rûsya dijî û netewahiya rûsî stendiye. Di 2010 de, wê konsêrek li Şanoya navdar a Bolchoy, li Mosko, kir. Di 2011 de, dest bi xwendina opêra kir. Çapemeniya rûsî navê wê kiriye "Dengê Cihanî yê Hêviyê". Yek ji muzîkjenên Bolchoy got ku gelek kêm stanbêjên cuhan weka Svetlana Kasyan, ku karibin eywana Şanoya Bolchoy tijje bikin, hene.

Svetlana li welatên cihê yên Ewropa, ku ji wan Îtalya, ku tê de rastî Papa Fanciscus hat, straye. Vê seredanê ew xist kelecaneke (heyecan) mezzin, ji bo ku ew cara yekemîn bû ku Papa pêşwaziya sopranoyekê dike. Wî jê re got ku bitenê li ser aşîtî û xêrxwaziyê bistirê.

Di 2011 de, ew çû bû Çînê û li wê derê beşdarî yariyekê (musabeqe) bû bû. Di heman salê de, ew li Îtalya beşdar bû konsêreke 9mîn Symphoniya Bethoven.

Mamosteya yekemîn a muzîkê ya Svetlana diya wê, Seda Xan, e. Wê mamostatiya vê hunerê 40 salan kir û pirtûkên wê hîn jî li dibistanan tên bi kar anîn.
*(rudaw.net, 19.01.2017*

**LUBNAN**

***Stranbêjeke lubnanî dixwaze ku bi kurdî bistirê***
Stranbêja lubnanî Leyla Ebbûd ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku ew dixwaze ku biçe seredana Kurdistanê û straneke bi kurdî bistirê, ji bo ku gelê kurd pêşketî ye û hêjayî vê yekê ye.
*(rudaw.net, 22.01.2017)*

**ALMANYA**

***Opêrayeke bi kurdî li ser şerrê Mûsilê***

Ihsan Osman, Kurdekî Iraqê (Duhok), li Wiesbadenê, di opêrayeke bi kurdî de, ya bi navê "Keçek li Herema Paşayekî", rola imperator Vilhem 2 lîzt. Nêzîkî 1.000 kes, ku ji wan kesahiyên siyasî, hunermend û rojnamevan, beşdarî wê bûn.

Osman ji ajansa Rûdawê re got ku babeta vê opêrayê şerrê Mûsilê bû. 4 Ewropî tê de ji aliyê Dewleta Islamî hatin revandin. Piştre, Kurdek ew kutah (xelas) kirin.

Osman got jî ku masrafa vê opêrayê milyonek û 200.000 € bû û ku ev cara yekemîn e ku ew li ser Kurdan e. Derhêner, Uve Lawfenberg, Alman e. Lîzvana (aktrîs) jin, Stela An, ji Korêya Başûr e.

Li dawiya opêrayê, orkêstreke almanî perçeya Mozarê navdar, "Bijî Şahê me", lîzt.

*(rudaw.net, 25.01.2017)*

**TIRKIYE**

***Fwara Navneteweyî ya Tûrîsmê***

21mîn Fwara Navneteweyî ya Tûrîsmê "EMITT" li Istanbulê bû. Bajarên Kurdistanê, weka Amed (Diyarbekir), Mûş, Batman, Colemêrg, Şirnex … tê de stand vekirin û cill, xalî û tiştên taybetî yên van navçeyan raxistin.

*(rudaw.net, 30.01.2017)*

*Ev bulten bi 4 zimanan, kurdî, fransî, hollandî û ingilîzî tê weşandin û bi e.mail ji nêzîkî 1.000 navnîşanan re tê şandin. Ew bi kurdî û fransî ji aliyê Pervîn Cemîl hatiye nivîsîn, ji aliyê Jona Mustafa hatiye wergerandin hollandî û ji aliyê Benedikte Von Achen hatiye wergerandin ingilîzî. Montaja wê ji aliyê Pieter û Nevîn Gerits û Jona û Benedikte hatiye kirin. Rênas Newrozî wê li ser CD'yan tomar (qeyd) dike û datîne ser facebook û malpera entêrnêtê, yên Buroya Kurdî, û* http://en.calameo.com/accounts/3601834. *Ew li ser kaxiz jî tê çap kirin û danîn nav pirtûkxaneya Buroyê, ku tê de berhemên bi nêzîkî 10 zimanan hene.*






**Vlaamse Gemeenschapscommisie**